# BUROYA KURDÎ
## *ya Pêwendî û Agahdariyê*

**Bultena sêmehî ya agahdariyê - N° 48 Nîsan 2009** ***www.kurdishbureau.be***
**Quai aux Pierres de Taille 11, 1000 Bruxelles Tél. 022198060 Email : kurdishbureau@scarlet.be**

**XEBATA BUROYA KURDÎ**

***Adar 2009***

**KONFÊRANS**

***15.03.2009 : Dîroka Kurdistanê (dûmahîk), sedsala 19mîn***

Wezîrê Eşo, dîrokzan, rêzeya konfêransên li ser dîroka Kurdistanê dewam kir. Ew li ser bûyerên gelek girîng ên salên 30 yên sedsala 19mîn rawestiya.

Li nêzîkî dawiya salên 1920, Mîrê Soran ku navenda mîriya wî Rewandûz, li Kurdistana Iraqê ya îro, bû, Mîr Mehmed, ku bi navê Mîrê Kor hati bû nasîn, ji bo ku çavekî wî ne didît, serhildanek kir. Wî mîriya xwe ber bi Rojava û Bakur fireh kir. Piştî stendina tevayiya Kurdistana Iraqê, wî Mardîn û Diyarbekirê, li Kudistana Tirkiyê, xistin bin destê xwe. Piştre, di 1834 de, wî beşek ji Kurdistana Îranê, parêzgeha Mukriyanê, jî ragihand mîriya xwe.

Di wê demê de, bi saya hevkariya di navbera Mî Muhammed û Paşayê Misê, Muhammed Elî (tê gotin ku ew Kurdekî Diyarbekirê, lê ku li Albanya jiya bû, bû), de, evê dawîn gelek welat ji destê Imperatoriya Osmanî, bi alîkariya welatên ewropî, stendin : Afrîqa Bakur, Balkan, navçeya Deryayê Sor, welatên erebî yên Rojhilatan Navîn …

Loma, Sultanê Osmanî tirsiya ku Kurdistan bibe dewleteke serbixwe û biryar stend ku ji nuh de wê dagîr (işgal) bike, mîrên kurd ji serxwebûn yan nîv-serxwebûna wan bêpar (mehrûm) bike û desthilata kurdî bi idare û leşkerî tirkî guherand. Dibe ku yek ji sedemên şkestina Mîr Muhammed qirkirina wî ya Kurdên yezîdî be, ji bo ku ew misilmanekî fanatîk (mute'assib) bû. Ev qirkirina Yezîdiyan ji aliyê leşkerê tirkî jî, nemaze li Sêrtê, li Kurdistana Tirkiyê ya îro, hat kirin û ew neçar (mecbûr) kir kir bibin misilman.

Piştî qirkirina sîvîlan bi çekkên giran, leşkerê tirkî Mîr Muhammed şikand. Lê serhildaneke din a mezzintir, a Mîrê Botan (li Kurdistana Tirkiyê ya îro), Bedirxan Beg, di salên 1840 de bû (dûmahîk heye).

**NEWROZ**

***Di 21 Adar 2009 de***, weka hemî Kurdan li cihanê, Buroya Kurdî jî Newroz bi rêsêpsyonekê li avahiya xwe pîroz kir.





*Newroza Buroya Kurdî 21/03/2009*

# *NÛÇE JI KURDISTANÊ Adar 2009*

## *KURDISTANA TIRKIYÊ*

**NAMEYEK JI NIVÎSKAREKÎ KURD JI SEROKÊ TIRK E**

***Di 02 Adar 2009 de***, rojnama tirkî Tarafê da zanîn ku nivîskarê kurd Mustafa Aydoğan ji serokê tirk Abdullah Gül, serokwezîr Recep Tayıp Erdoğan, û ji kesên din ên ramyarî (siyasî) re nameyeke vekirî şandi bû û tê de ji Tirkiyê xwesti bû ku ferhenga kurdî ya ne temambûyî ya Mîr Celadet Bedir Xan, ku di 1918 de ji aliyê Dadgeha Serxwebûnê (Istiklal Mahkemesi) ya Elazîzê hati bû stend, ji Kurdan re vegerîne.

Rojname dibêje jî ku ev daxwazî li saraya serokatiyê ya Çankaya û li bal serokê encumena lêgerînên li ser mafên mirov ya parlementa tirkî, Zafer Uskul, e.

Di nama xwe de, Aydoğan dibêje ku Mîr Bedir Xan nameyeke dîrokî ji serokê tirk Mustafa Kemal (Ata-Türk) re, di 8 (ocak) 1933 de, li ser reşnivîsa vê ferhenga ne temambûyî, ya 13.090 gotinan, nivîsî bû.
*(Milliyet, nefel.com, 02.03.2009)*

**DOZA ERGENEKONÊ : BÎRÊN MIRINÊ**

Di çarçeva doza Ergenekonê (li bultena buhurî binêre) de, dadiya (edalet) tirkî lêgerînan dike ji bo ku laşên goriyên (qurban) "kuştinên nezelal", ku di salên 1990 de ji aliyê polîsê taybetî "JITEM" hati bûn kirin ( ji 17.000 kuştî bêtir li Kurdistana Tirkiyê), bibîne. Ev laş di "bîran" de hati bûn veşartin :

***Di 09 Adar 2009 de***, du hestî û perçeke caw (qumaş) li bexça jandarma leşkerî ya Botaşê, li nêzîkî Şirnexê, hatin dîtin.

***Di 11 Adar de***, hestî, por, lepik û kumek li paş xwaringehekê (rêstoran), li nêzîkî Silopî, hatin dîtin.
*(rizgari.org, serwext.com, Kurdistan-news.net, 11.03.2009)*

***Di 14 Adar de***, hestiyê seriyekî û bennek li Botaşê hatin dîtin.
*(netkurd.com, azady.nl, 14.03.2009)*

***Di 17 Adar de***, şaredarê berê yê Cizîrê (Cizre), Kamil Atek, û ***di 22 Adar de***, kolonêl Cemal Termisöz, di çarçeva lêgerînên li ser kuştinên nezelal de hatin ragirtin.
*(netkurd.com, 23.03.2009; azady.nl, 25.03.2009)*

**8 ZAROK TÊN TAWANBAR KIRIN**

***Di 18 Adar 2009 de***, dadgeha cezayî ya Adana careke din zarok bi girtinê tawanbar kirin (li bultena me ya buhurî binêre).

A.C. (14 salî), A.E. (15 salî), M.A. (17 salî), R.D. (18 salî), H.D. (17 salî), M.G. (15 salî) û Ş.A. (15 salî), her yek ji wan bi 4 sal û 10 meh zîndan hatin tawanbar kirin, ji bo ku ew di Sibat 2009 de beşdar bû bûn xwepêşandaneke ji bo serokê PKKê, Abdullah Öcalan, û bi avêtina kevviran polîsan hati bûn gûman (şubhe) kirin.
*(netkurd.com, 19.03.2009)*

**SEROKÊ TIRK GOT "KURDISTAN" !**

***Di 22 Adar 2009 de***, serokê tirk Abdullah Gül çû Bexdadê û tê de rastî serokê Iraqê, Celal Talabanî, hat. Di firokê de, ew bi rojnamevanan re li ser sedemên seredana xwe peyivî û got : *"Desthilata Herêma Kurdistanê"* ! Û wî got jî : *"Di destûra iraqî de, Kurdistan hatiye nivîsîn. Hûn çi dixwazin ku ez bêjim ? Ma Yûnanistan nabêje "Makêdonya" ? …"*
*(avestakurd.net, 23.03.2009 ; rizgari.org, 24.03.2009)*

***Di 23 Adar de***, Mîrza Gül li Bexdadê rastî serokwezîrê Kurdistana Iraqê, Nêçîrvan Berzanî, hat. Her du alî li ser pêşveçûna

pêwendiyên xwe di warên ramyarî, aborî, çandî û ewlehiyî (emniyet) de giftûbêj kir.
*(peyamner.com, 24.03.2009)*

**BOMBEKIRINA KURDISTANA IRAQÊ**
***Di 25 û 26 Adar 2009 de***, leşkerê tirkî gundên Hêşû, Rêjne, Carmendî û Bêgul, ên navçeya sînorî ya Nêrwe Rêkanê, qezayê Zaxo, parêzgeha Duhokê, bombe kirin.
*(peyamner.com, avestakurd.net, azady.nl, 26.03.2009)*

**HILBIJARTINÊN ŞAREDARIYÎ LI TIRKIYÊ**
***Di 29 Adar 2009 de***, hilbijartinên şaredariyî li Tirkiyê bûn. Partiya ku bi awakî ne fermî kurdî ye, DTPê, 98 şaredarî kar kirin. Wê di hilbijartinên berê yên 2004 de 53 kar kiri bûn. 12 jinên kurd ên vê partiyê weka şaredar hatin hilbijartin. Li Diyarbekirê, vê partiyê 66.14% û partiya islamî ya desthilatê, AKPê, 30.85% deng stendin. Li tevayiya Tirkiyê, DTPê 5,35% stend.
*(Çapemeniya tirkî û kurdî, 30.03.2009)*

Ji partiyên tirkî, partiya ku ji 2002 de li desthilatê ye, AKPê, 39,05% stend. Wê di hilbijartinên şaredariyî yên 2004 de 41,7% û di yên parlementerî di 2007 de 46,6% stendi bû. Partiya kemalîst CHPê 23,30% û ya faşîst MHPê 16,16% stend.

## KURDISTANA IRAQÊ

**PÊŞKÊŞKIRINA 40 TON PIRTÛK**
***Di 01 Adar 2009 de***, birêvebirê agahdariyê yê wezareta perwerdeya bilind û lêgerîna zanyarî li Kurdistana Iraqê, Mustafa Zengene, da zanîn ku wezareta wî 40 ton pirtûkên zanyarî (ilmî), weka diyarî, ji rêxistina xeyrî ya amerîkî Sapray stendin. Ev pirtûk di warên bijîjkî (tibbî), endazî (hendese), perwerdeya bingehîn … de ne û ewê li zanîngeh û enstituyên Kurdistanê bên belav kirin.
*(peyamner.com, 01.03.2009)*

**SEREDANA WEZÎRÊ SWÎSRÎ YÊ ÇANDÊ**
***Di 01 Adar 2009 de***, wezîrê kurd ê çandê, Felekeddîn Kakeyî, li Hewlêrê pêşwaziya hevkarê xwe yê swîsrî, Patris Muni, kir. Evê dawîn got ku hebûna 70.000 Kurd li Swîsrê ew han da (teşwîq kir) ku vê seredanê bike, ku wî wezîrê kurd û yên din vexwendin seredana Swîrsra û ku ewê komeke muzîka kurdî di 2010 de bê vexwendin ku beşdar bibe Fêstivala salane ya Muzîkê ya Jenêvê.
*(azady.nl, 02.03.2009)*

**DOZA BERZANIYAN**
***Di 02 Adar 2009 de***, li Bexdadê doza « hundabûn »a 8.000 kes ji êla Berzanî di 1983 de dest pê kir.
*(avestakurd.net, serwext.com, 02.03.2009)*

**« ALÎ KÎMYAWÎ » HUKMÊ ÎDAMÊ DISTÎNE**
***Di 02 Adar 2009 de***, pismamê Saddam Huseyn, Alî Hesen El-Mecîd, ku bi navê « Alî Kîmyawî » hatiye nas kirin, ji bo ku wî di 1988 de Kurd bi gazên şîmîk kuşti bûn, ji aliyê dadgeha Bexdadê cara 3mîn hukmê îdamê stend.

Her sê dozên ku wî tê de hukmê îdamê stend ev in : 1988, gazkirina Kurdan li Halabca ; 1989, sirgûnkirin ber bi Îranê û kuştina Kurdên şîî (Feylî) ; 1990, kuştina şîiyên ereb.
*(Al-Hayat, Milliyet, aknews.com, azady.nl, rizgari.org, 03.03.2009)*

**ÊRÎŞ LI DIJÎ KURDAN**

***Di 03 Adar 2009 de***, polîsê Kerkûkê da zanîn ku çekdarên nenas agir berda Wurya Fettah Axa, birayê serokê êla (eşîr) kurdî ya Kakayî, Adnan Axa, û ew kuşt.
*(peyamner.com, 03.03.2009)*

***Di 23 Adar de***, êrîşeke xwekuj li Celawla, li qezayê erebkirî yê Xaneqînê, 28 kes kuştin û 55 birîndar kirin.
*(azady.nl, 23 û 24.03.2009 ; Al-Hayat, 24.03.2009)*

**DÛMAHÎKA SEREDANÊN SEROK BERZANÎ LI EWROPA**

Piştî Îtalya (li bultena me ya buhurî binêre), serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, tevî şandekê çû seredana Almanya, Ingiltere û Beljîka :

***Almanya***

***Di 04 Adar 2009 de***, Mîrza Berzanî ji aliyê serokwezîra alman, Banû Angela Merkel, û wezîrê karen derve, Frank Walter Steinmeier, hat pêşwazî kirin. Her du alî biryar stend ku pêwendiyên xwe di warên ramyarî û aborî de dewam bikin. Piştre, ew rastî revenda (diaspora) kurdî li Almanya hat.
*(netkurd.com, avestakurd.net, nefel.com, 05.03.2009; peyamner.com, 07.03.2009)*

***Ingiltere***

***Di 10 Adar 2009 de***, Mîrza Berzanî li Saraya Bucknghamê ji aliyê Mîr Andrew, kurrê Şahbanû Elisabeth û mîrê Yorkshirê, hat pêşwazî kirin. Wan li ser pêwendiyên aborî di nav her aliyan de û şirketên brîtanî ku li Kurdistana Iraqê kar dikin giftûbêj kir. Piştre, ew rastî wezîrê brîtanî yê karên derve, David Miliband, hat.
*(peyamner.com, neflel.com, avestakurd.net, 10.03.2009)*

***Di 11 Adar de***, ew rastî wezîrê brîtanî yê dadiyê Jack Straw, wezîrê dewletê Bill Ramel û serokwezîrê berê John Major hat. Piştre, wî semînerek li Enstitutya Brîtanî ya Lêgerînên Navneteweyî, bi amadebûna, kesahiyên ramyarî û akadêmîk, dîplomat û lêgeran, kir.
*(peyamner.com, 11 û 13.03.2009)*

***Di 12 Adar de***, ew çû seredana parlementa brîtanî û tê de ji aliyê seroka koma Iraqê, An Klud; serokê koma Kurdistanê, Yekma, û jimareke parlementeran hat pêşwazî kirin. Piştre, rastî wezîrê brîtanî yê parastinê, John Hutton, hat. Li balyozxana (sefaretxane) iraqî li Londonê, wî pêşwaziya balyozên ereb û nimînendeyê Lîga Erebî kir. Ev balyoz ên Kuweyt, Uman, Qeter, Cezayir, Yemen, Tûnis, Lubnan, Misr, Maxrêb û Filistînê bûn. Balyozxaneyên din, Erebistana Suûdî, Behrên û Lîbya, nimînendeyên xwe şandin. Û ew rastî revenda kurdî li Ingilterê jî hat.
*(peyamner.com, 12.03.2009)*

***Bruksêl***

***Di 18 Adar 2009 de***, Mîrza Berzanî ji aliyê Nimînendeyê Bilind ê Yekîtiya Ewropî, Xavier Solana, hat pêşwazî kirin. Wan rewşa nuha li Iraq û Kurdistanê giftûbêj kir. Mîrza Berzanî ji Mîrza Solana xwest ku Yekîtiya Ewropî çalaktir be û ku piştgiriya pêvajoya ramyarî li Iraq û Kurdistanê bike.
*(araratnews.com, 17.03.2009; peyamner.com, netkurd.com, nefel.com, rizgari.org, 18.03.2009; KRG-Bruksêl, 20.03.2009; aknews.com, 22.03.2009)*

**PROTOKOLEK DI NAVBERA ODEYÊN BAZARGANIYÊ YÊN HEWLÊR Û WANÊ**

***Di 06 Adar 2009 de***, her du odeyên bazarganiyê yên Hewlêr û Wanê li Hewlêrê protokolek li ser hevkariya xwe ya aborî wajo (imza) kir.

Serokê Oda Bazarganiyê ya Hewlêrê, Dara Celîl, da zanîn ku sermayedarên Hewlêrê dixwazin ku pêwendiyên xwe yên aborî xurttir bikin. Û wî got jî ku ji berê

lihevkirinên weha bi odeyên bazarganiyê yên Diyarbekir, Dîlok, Adana û Istanbûlê hati bûn wajo kirin.
_(Rûdaw, 07.03.2009)_

**PARLEMENTERÊN KURD ÊN JIN ÊN IRAQÊ LI DIYARBEKIRÊ**

***Di 08 Adar 2009 de***, bi hinceta cêjna jinê, 3 jinên parlementer ên Kurdistana Iraqê, ji partiyên ramyarî yên cihê, çûn seredana şaredarê Diyarbekirê, Osman Baydemir.
_(netkurd.com, 08.03.2009)_

**ŞANDEKE KURDÎ LI LUBNANÊ**

***Ji 08 heta 11 Adar 2009***, bi vexwendina Rêxistina ji bo Hevaltiya Lubnan-Kurdistanê, şandek ji Kurdistana Iraqê çû Beyrûtê. Ew ji wezîrê tûrîsmê Nemrûd Bayto (fille), serokê servîsa pêwendiyên derve ya Hukûmeta Kurdistana Iraqê Fellah Mustafa, û ji sermayedar û nimînendeyên sendîkan pêk hati bû.

Şande ji aliyê serokwezîrê lubnanî Fuad Sinyora, wezîrê karên derve Fewzî Sallûx, wezîrê çandinê Ilyas Skaf, ê çandê Temam Selam, ê aborê Muhammed El-Safadî û yê tûrîsmê Elie Marûnî hat pêşwazî kirin.

Odeya Bazarganî, Pîşesazî (sina'et) û Çandinê ya Beyrûtê, û Mt. Lebanon Mêmorandumek "Memorandum of Understanding" bi Odeyên Bazarganî û Pîşesazî yên Herêma Kurdistanê re, ji bo hevkariya aborî, wajo kir.
_(KRG, peyamner.com, 09.03.2009)_

**NIMÎNENDEYÊ KURDISTANÊ LI UNê**

***Di destpêka Adar 2009 de***, nimînendeyê Hukûmeta Herêma Kurdistana Iraqê li bal UNê (Rêxistina Neteweyên Yekbûyî), Dîndar Zîbarî, li New Yorkê beşdar bû civîna giştî ya 10mîn a encumena mafên mirov a UNê. Ew tê de li ser pêşveçûna mafên mirov li Kurdistanê peyivî.

Mîrza Zîbarî da zanîn ku sekreterê giştî yê UNê, Ban Ki Mun, encumenek ji bo alîkarîkirina pêşveçûna mafên mirov li Kurdistana Iraqê dest nîşan kiriye.
_(peyamner.com, 09.03.2009)_

**CELAL TALABANÎ XELATEK LI ISTANBÛLÊ DISTÎNE**

***Di 16 Adar 2009 de***, Kongreya Cihanî ya Avê li Istanbûlê dest pê kir. Serokên 25 dewletan, nimînendeyên 100 welatên din û ji 20.000 pisporên hawîrdorê bêtir beşdarî wê bûn.

Serokê Iraqê, Celal Talabanî, tê de Xelata Stêrka Geş, ku ji kesên ku samanên (serwet) av û sirûştê (tabîet) diparêzin re tê dayîn stend.
_(peyamner.com, 22.03.2009)_

**ŞANDEKE PARLEMENTERÎ YA BRÎTANÎ LI KURDISTANÊ**

***Di 25 Adar 2009 de***, serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, pêşwaziya parlementera brîtanî û şanda serokwezîrê vî welatî, û şanda ku pê re kir.

Her du alî li ser rewşa mafên mirov û girtiyan li Kurdistanê giftûbêj kir. Wan li hev kir ku bernameyeke demdirêj ji bo dîtina çareyan ji pirsên jinan, girtiyan û azadiya çapemeniyê re çêkin.
_(peyamner.com, avestakurd.net, 25.03.2009)_

**************

## *KURDISTANA ÎRANÊ*

**CUHANEKÎ KURD HETA MIRINÊ TÊ ÊŞKENCE KIRIN**

***Li dawiya Sibat 2009***, cuhanekî kurd ê 16 salî, Behzad Gol Mohammadî, ji aliyê hêzên ewlehiyê yên îranî heta mirinê hat êşkence kirin. Laşê wî li ser berfa çiya, li nêzîkî Salmasê, li Kurdistana Îranê, li nêzîkî sînorê tirkî, hati bû avêtin.

*(azady.nl, 02.03.2009)*

**BOMBEKIRINA KURDISTANA IRAQÊ**

***Di 10 Adar 2009 de***, topxaneya îranî du katjmêran gundên Rezka, Mara û Duwu, yên qezayê Zarawa, li Bakurê Rojhilata Suleymaniyê, bombe kirin. Zarokek hat kuştin û dê û bavê wî birîndar bûn.

*(peyamner.com, 11.03.2009 ; azady.nl, 12.03.2009)*

## KURDISTANA SÛRIYÊ

**CÊJNA JINÊ LI QAMIŞLÎ QEDEXE YE**

***Di 08 Adar 2009 de***, pîrozkirina cêjna cihanî ya jinê li Qamişlî hat qedexe kirin !

Li gora malpera intêrnêtê "Jinên Sûriyê », çend jinên ku ji partiyên ramyarî (siyasî) serbixwe ne xwest ku vê cêjnê pîroz bikin. Du roj berê, di 06 Adar de, polîs bangî wan, xwediyên xwaringeh (rêstoran) û ciyên din ku ewê tê de cêjn bihata pîroz kirin kir û ew tehdîd kirin.

*(avestakurd.net, 09.03.2009)*

**RAGIRTIN DI 12 ADAR 2009 DE**

***Di 12 Adar 2009 de***, ji bo bîranîna serhildana 12 Adar 2004, Kurdên Sûriyê hema li herderê Kurdistanê û li bajarên erebî ku tê de gelek Kurd dijîn, weka Heleb, Şam …, û li Ewropa xwepêşan da (meşiyan). Li Suleymaniyê, li Kurdistana Iraqê, bîranînek, bi amadebûna nimînendeyên ramyarî, bû.

Polîs li Helebê êrîş kir û 23 xwendekar ragirtin.

*(efrin.com, avestakurd.net, 13.03.2009 ; azady.nl, 14.03.2009)*

**STRANBÊJEK JI SEDEMA HALABCA TÊ RAGIRTIN**

***Di 16 Adar 2009 de***, ji bo bîranîna kuştina Kurdan ji aliyê rejîma Saddam Huseyn bi gazên şîmîk li Halabca, Kurdên Sûriyê li herderî 5 xulek (deqqe) bêdeng rawestiyan.

Li gora Rêxistina Kurdî ya Mafên Mafên Mirov li Sûriyê, DAD, stranbêjê kurd, Abdusselam Mehmûd, tecrube kir ku li studyoya xwe stranek li ser Halabca bêje. Hêzên ewlehiyê ew bihîst, ragirt û bir ewlehiya ramyarî ya Hesîçê.

*(amude.com, 17.03.2009)*

**RAGIRTIN Û TÊKDANÊN EYWANÊN ŞANOYAN DI NEWROZÊ DE**

***Di 21 Adar 2009 de***, Rêxistina Kurdî ya Mafên Mirov da zanîn ku di pîrozkirinên cêjna Newrozê de, polîs li ciyên cihê êrîş kir :

Li navçeya bendava (baraj, sed) bakurî ya Hesîçê, wê endaz (muhendis) Suleyman Mecîd Ûso, yek ji berpirsiyarên partiya kurdî Yekîtî ragirt, dema ku wî tecrube dikir ku nehêle ku polîs avahiya şanoya koma folklorê ya vê partiyê hilweşîne.

Bi ser de jî, 5 kes li gundê Tmoya, 45 km li Bakurê Hesîçê, ragirtin, ji bo ku wan tecrube dikir ku bilêseya (meş’ele) Newrozê vêxin, û ew birin ciyekî nenas.

Û hêzên ewlehiyê eywanên şanoyên komên folklorî li bajarên Dêrik (nave erebkirî : Malikiyye), Tirba Sipî (navê erebkirî : Qehtaniyya), Helîq û Bajrîqê hilweşandin. Ji berê jî, wan eywanan li Amûdê hilweşandi bûn.
*(peyamner.com, 23.03.2009)*

**4 KURD TÊN TAWANBAR KIRIN**
***Di 30 Adar 2009 de***, li gora Rêxistina Sûrî ji bo Parastina Mafên Mirov, dadgehek li Şamê 4 Kurd ji partiya kurdî Azadî bi cezayên zîndanê, ji bo endambûna partiyeke kurdî ya qedexe li Sûriyê, tawanbar kirin.

Jihad Salih Ebdo û Abdulqadir Ahmed bi 5 sal zîndan, ji bo „*qelskirina hestê neteweyî*“, û Salih Bin Muhammed Ebdo û Huseyn Bin Hamîd Muhammed jî bi 4 sal zîndan hatin tawanbar kirin.
*(azady.nl, 31.03.2009)*

## *NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ*

**FÎLMEKE KURDÎ LI TEHRANÊ**
***Di 03 Adar 2009 de***, piştî tecrubeyên mezzin ji aliyê rêxistina xwendekaran a kurdî, Koma Kurmanc, fîlma „Kûsî jî dikarin bifirrin“, a fîlmçêkerê kurd ê Îranê yê navdar, Behmen Qobadî, li zanîngeha Tehranî hat nîşan dan. Ji 300 xwendekarên kurd û ne kurd bêtir lê nêrî.
*(rizgari.org, 04.03.2009)*

**FÊRÊN ZIMANÊ KURDÎ LI KURDISTANA ÎRANÊ**
Bi saya heman rêxistina ku me li jor got, Koma Kurmanc, fêrên zimanê kurdî (zaravê kurmancî) li Merîwanê, li Kurdistana Îranê, ji aliyê du berpirsiyarên wê, Kawe Dêpûyad Merîwanî û Hêmin Huseynî, tên dayîn.
*(rizgari.org, 11.03.2009)*

**ÇÎROKEKE KURDÎ BI SWÊDÎ LI SER CD**
***Di Adar 2009 de***, çîrokeke kurdî “Şahmeran”, ku di 1990 de ji aliyê pirtûkxana kurdî SARA li Stokholmê hati bû weşandin, bi devkî, bi zimanê swêdî, li ser CD „tablok“ hat weşandin.

Ev çîroka li ser xwezayê (tebî’et) di 1992 hati bû wergerandin swêdî û di 2004 de katalanî.
*(rizgari.org, 12.03.2009)*

**PIRTÛKEKE KEVN LI SER DÎROKA KURDÎ TÊ WERGERANDIN TIRKÎ**
***Di Adar 2009 de***, weşanxana kurdî Avesta yek ji kevntirîn pirtûkên kurdzaniyê, ku di 1818 de li Napolî, li Îtalya, ji aliyê R.P. Guiseppe Campanilê îtalî hati bû nivîsîn, weşand.

Ev pirtûka 152 rûpelî bi sernivîsa „Kürdistan Tarihi“ (Dîroka Kurdistanê) ji aliyê Heval Bucak ji fransî hatiye wergerandin tirkî. Buhayê wê 11 lîreyên tirkî ye : ISBI : 978-9944-382-61-8
www.avestakitap.com
*(netkurd.com, 12.03.2009)*

**DESTANEKE KURDÎ BI ALMANÎ LI KURDISTANA IRAQÊ**
***Di 11 û 12 Adar 2009 de***, Mala Opêra Almanî destana kurdî ya navdar, Mem û Zîn, bi almanî li Hewlêrê pêşkêş kir.

Çêkerê vê opêra, Ihan Osman, Kurdekî ku li Almanya dijî ye. Destana ku ji çîrokeke gelerî hatiye stendin di sedsala 17mîn de ji aliyê helbestvanê kurd ê navdar, Ahmedê Xanî, hatiye nivîsîn.
*(peyamner.com, 14.03.2009)*

**PÊŞANGEHEKE PIRTÛKAN LI HEWLÊRÊ**

***Di 14 Adar 2009 de***, pêşangeheke pirtûkan li Hewlêrê ji aliyê parêzgarê vê parêzgehê, Newzad Hadî, hatin vekirin.

Ev pêşangeha ku ewê hefteyekê bimîne tê de 3.500 pirtûkên di warên cihê de hene. Ew ji aliyê weşanxana lubnanî „Dar El-M'arifa“, bi beşdarbûna 45 weşanxaneyên erebî ji Sûriye, Lubnan, Misr, Lîbya û Erebistana Suûdî, hat pêk anîn. Dar El-M'arifa di 1969 de hat ava kirin û buroyeke xwe li Hewlêrê di 2005 de vekir.
*(peyamner.com, 15.03.2009)*

**STRANBÊJEKE KURD LI MADRÎDÊ**




***Di 17 Adar 2009 de***, stranbêja kurd a Tirkiyê, Aynur, konsêrek li eywana Galileo Galilei, li Madrîdê, li Ispanya, da. Ew ji aliyê wezareta ispanî ya Wekheviyê, di çarçeva konsêrên jinan de, hati bû vexwendin. Ev cara 2mîn e ku Aynur li Madrîdê distirê.
*(avestakurd.net, 22.03.2009)*

**30 BALYOZ LI HEWLÊRÊ JI BO PÎROZKIRINA NEWROZÊ**

***Di 21 Adar 2009 de***, serokwezîrê Kurdistana Iraqê, Nêçîrvan Berzanî, li Hewlêrê pêşwaziya balyozên (sefîr) ji 30 welatan bêtir kir. Ew bi hogiriya wezîrê Iraqê yê karên derve, Hoşyar Zîbarî (kurd), ji bo pîrozkirina Neworzê hatin.
*(peyamner.com, netkurd.com, 22.03.2009)*

**ROMANA „DON QUICHOTTE“ TÊ WERGERANDIN KURDÎ**

***Di 21 Adar 2009 de***, çalakvanê kurd Irfan Güler wergerandina kurdî ya romana navdar « Don Quichotte » pêşkêşî muzeya Cevantino, li navçeya Castilla La Mancha, li Ispanya, kir. Di vê muzeyê de hemî wergerandinên Don Quichotte li cihanê hene.

Wergerandina kurdî ji aliyê Serdar Roşan û weşandin jî ji aliyê weşanxana Doz hat kirin.
*(avestakurd.net, 22.03.2009)*

**KAMÊRAYEK JI HALABCA RE TÊ PÊŞKÊŞ KIRIN**

***Di 22 Adar 2009 de***, di merasîmeke li Halabca, li Kurdistana Iraqê, de û bi amadebûna şaredarê vî bajarî û berpirsiyarê Monumenta Bîranîna Halabca, rojnamevanê kurd ê Tirkiyê, Ramazan Öztürk, ji Monumenta Halabca re kamêra ku wî pê fotoyên goriyên (qurban) çekên şîmîk di 18 Adar 1988 kişandi bûn diyarî kir.
*(avestakurd.net, 23.03.2009)*

**FÎLMEKE LÎZVANEKÎ CUHAN Ê KURD LI BELJÎKA**

***Di 25 Adar 2009 de***, fîlma « Welcome » a li ser derhatîbûna (immigration) îllêgal li bajarê Liège, li Beljîka, hat nîşan dan. Ew ji aliyê fîlmçêkerê fransî, Philippe Lioret, hatiye çêkirin û tê de lîzvanekî kurd ê cuhan, Firat Ayverdi, dilîze (li bultena me ya buhurî binêre). Fîlm di çarçeva Hefteya Çalakiyên li Dijî Nijadparêziyê de, ji aliyê rêxistina MRAX, hat nîşan dan.
*(Mrax-Info, Adar 2009)*

***Di 30 Adar 2009 de***, ev film li eywanên sînema yên bajarên Liège, Namur û Mons hat nîşan dan.
*(Coordination des Sans Papiers, 30.03.2009)*

**MÊDYA LI KURDISTANA IRAQÊ**
Li gora Wezareta Çandê ya Herêma Kurdistana Iraqê, li Kurdistanê 16 kanalên têlêvîzyonên bi satêlît, 45 radyo, 861 weşanên nivîskî yên her celebî, ajanseke neteweyî ya çapemeniyê, Aknews, û sê malperên fermî yên entêrnêtê hene.
*(aknews.com, 19.03.2009)*

**FERHENGEKE BIJÎJKÎ BI KURDÎ**
***Di Adar 2009 de***, oda bijîjkan (doktor) li Diyarbekirê ferhengeke termên bijîjkî "Anameza bi kurmancî" weşand. Ew ji aliyê Dr. Israfil Bülbül û Miakil Bülbül, ku endamê Kurdî-Der de, hatiye nivîsîn.
*(netkurd.com, 22.03.2009)*

**JINEKE KURD DIBE DANIŞMENDA CÎGIRÊ SEROKÊ AMERÎKA**
***Di Adar 2009 de***, cîgirê serokê amerîkî, Joe Biden, jineke cuhan a kurd, Hêro Abdulqadir Heme Emîn, weka danişmenda (muşawir) xwe ji bo karên Rojhilata Navîn, nîşan (ta'yîn) kir.

Hêro Emîn li Hewlêrê di 1973 de bûye. Ew keça sernivîskarê heftenama Barzan, Abdulqadir Heme Emîn, e. Dema ku ew piçûk bû, tevî malbata xwe pena bû Îranê û piştre Amerîka. Wê "master"ek di pêwendiyên navneteweyî de, li zanîngeha amerîkî ya Brenstenê, kir. Di 1999 de, li wezareta amerîkî ya karên derve kar kir. Di 2003-2004 de, bû berpirsiyara bingeha sîvîl a amerîkî li Mûsilê.
*(Rûdaw, netkurd.com, avestakurd.net, serwext.com, 25.03.2009)*

**FÎLMEKE KURDÎ LI SWÎSRA**
***Di 27 Adar 2009 de***, ewê fîlma « Laissez-Passer » (Belgeya Derbasbûnê), a fîlmçêkerê kurd Xemgîn Salih, li Zurichê, li Swîsra, li eywana sînema Uto bê nîşan dan. Fîlm li ser pirsa derhatîbûnê (immigration) e û weka erkê (wezîfe) dawiya xwendinê li Dibistana Huner û Ragihaninê hat çêkirin.
*(avestakurd.net, 25.03.2009)*

**PIRTÛKÊN ZAROKAN JI SWÊDÎ TÊN WERGERANDIN KURDÎ**
***Ji Çile heta Adar 2009***, weşanxena kurdî APECê, ku li Stokholm e, 18 pirtûkên ji bo zarokan, ku ji swêdî hatine wergerandin kurdî, weşandin. Ew xebatên weha ji salan de ye dike.
*(nefel.com, 31.03.2009)*

BRUSSELS HOOFDSTEDELIJK GEWEST
VLAAMSE GEMEENSCHAPSCOMMISSIE

Ev bulten bi piştgiriya Vlaamse Gemeenschapscommissie (VGC), bi çar zimanan, kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî, hatiye weşandin.